Destveanîna Mafên Netewî Yên Gelê Kurd Di Çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 133
20'ê Nîsana 2010
Buha: 150 Tûmen

agiri

Duheftînameya siyasî, civakî, çandî û hunerî

Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne

**Hiloşandina rejîmê ji riya piştevanî kirin ji xelkê**
Rojnameya Waşington Taymz di sergotara xwe de baştirîn rê û mekanîzm ji bo xilasbûn ji rejîma Wilayeta Feqîh, piştevanî kirin ji xelkê dizane û dide zanîn ger ku Amerîka dixwaze rewşa Îranê biguherîne, ne hewcehî bi tehrîman û ne jî bi êrîşa leşkirî dike, belkî divêt piştevaniya xelkê Îranê ji bo hiloşandina rejîmê bike. Çunku xelk niha li şik u dudiliyê de ye ka gelo Amerîka dê piştevaniya wan bike yan na û bi hiloşandina rejîmê, berjewendiyên Amerîkayê jî di Rojhilata Navîn dê berçav bihên parastin.

# Tevgera Bêy Rêberiya Bibiryar, Bi Encam Nagihîje



**Semînara "Pêşeroja Kurd li guhertinên Îranê de"**

Di bin navê Pêşeroja Kurd li guhertinên Îranê de, semînarek li roja Çarşem û Pêncşemî, 14 û 15'ê Nîsana 2010'an ji aliyê Peymangeha Kurdistan bo pirsên Siyasî, li sentera Alaya Hewlêrê ji bo birêzan Mistefa Hicrî, Sekreter Giştî yê PDK Îranê, Mihemed Şafiî, endamê Deftera Siyasî a Komeleya Zehmetkeşên Kurdistana Îranê û Husên Yezdanpena, Cihgirê Serokê Partiya Azadiya Kurdistanê birêve çû. Li Semînarê de nûnerên çend part û aliyên siyasî yên kurdistanî, hejmarek ji kesatiyên binav û deng yên gelê me û beşek berçav ji endamên hizbên siyasî têde beşdar bûn. Birêz Mistefa Hicrî di axaftina xwe de bi hûrî bal kişande ser sîstema Komara Îslamî û sedemên baykotkirina bi nav hilbijartina gera 10'mîn a Serkomariyê li Îranê û herweha helwesta PDK Îranê derheq bûyerên piştî binav hilbijartinê.

**Dom li Ropela 4'an de**

## Bo Êrîşa Ser Îranê, Em Li Benda Biryara Obama Ne

Berpirsê Naweda hevpar a Ertêşa Amerîkayê di axaftinek bi gef de ragihand: Hêzên leşkirî yên Amerîkayê ji bo êrîşa ser Îranê bi tewahî amade ne.



Mayk Molên ew axaftina xwe hevdem li gel birêveçûna cejna roja Ertêşê di Îranê de anî ziman û got: Hemû rêçareyek bi taybetî ya nizamî derheq bi metirsiyên bernameyên navikî yên Îranê li ser masê ne û hêzên nîzamî ên Amerîkayê amadene her dema ku Serokkomarê Amerîka yê biryarê bide, êrîşê bikin ser Îranê.

Navbirî herweha got ku êrîşa leşkirî bo ser Îranê piştî bi encam negihîştina rêçareya dîplomatîk, weke dawîn rêçare bo çareser kirina wê pirsê tê bikaranîn. Ji berku êrîş dê bihê bikaranîn.

Herweha wî zêde kir ku: Ger biryar be êrîş li ser Îranê bê kirin, dibe ew çend bi zûyî bihê encamdan, jiberku di heyamek ne dûr de Îran dê bibe xwediyê çeka etomî û ew yek jî metirsiyek mezin e bo ser tev aliyekî.

Mistefa Hicrî

# Em Nav Bo Tu Aliyekê Dananên, Belkî Em Dibêjin Navê Me Li Ser Xwe Danenên

## Hevpeyvîna rojnameya "Mîdya"li gel Sekreterê Giştî yê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê.

Rêzdar Mistefa Hicrî, Sekreterê Giştî yê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê di hevpeyvînekê de ligel rojnama "Mîdya", çapa Hewlêrê, bersiva Çend pirsyaran derheq pirsa yekîtiya navbera Partiyên Kurdistanî ên Kurdistana Rojhelat û herwiha ew lêborîna giştî dide ya ku wî derheq bi xapandiyên gelê me ragihandibû. Ewa ku vir de dikeve ber çavên we, deqa tewaw ya hevpeyvîna me ye.

**Komîta Yekbûn, kempîna yekgirtinê, televîzyona Beyan û komîta yêkxistina Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê û çend girûpên din daxwaza yekgirtina Partiya Demokrat dikin û hûn di asta serokatiya vê Partiyê de bêdeng in, erê gelo eve manaya dijberiya we bi yekgirtinê nagehîne?**

Derheq wê kempînê û hemû ew çalakiyên ku li ser wê meselê li ser malperan, televîzyonan û di kor û civîn û rojnameyan de tên belavkirin, em agehdarin Lê li rastî de ez wan bizav û hereketane pêtir di çarçoveya teblîxat û piropagendeyan de dibînim heya çarçoveya siyasetek rohn û diyar de. Min jêwe ye beşek ji ew kesên ku wan karan dikin, dilsûj in û hez dikin ku Kurd ji hev nizîk bin û tefreqe di nava wan de nebe: Lê di heman demê de ew kesên ku pîlanrêjiya wê pirojeyê di dest de ne, wê yekê dizanin ku yekgirtin, nizîkbûn û her tiştên ku di wê peywendiyê de bihê baskirin, ne di dezgehên ragihandinê de tên cî bi cîkirin û ne jî di bernameyên televîzyonî de. Lewma ez wê yekê pêtir weke teblîxat, xwe navdarkirin û bazargermî yê dibînim heya alîgirî ji yekgirtinê. Lê balkêş ew e yên ku pêtir ji hemûyan xwe bi wê meselê ve mandî dikin û banga yekgirtin û ji hev nizîkbûnê didin, hêzek e ku pêtir ji hemûyan hêza Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê bi gotina xwe û perçe kir kû, bi tefsîra me ji Partiya Demokrat bi bê tu egerên siyasî û tenê jiber berjewendiya grûpî yan ji takekesî veqetiyan Nexa, eva piştî 3 salan bi ser cudabûnê de berewajî îdîayên xwe yên destpêka cudabûnê, ji xelkê Kurd re eşkere bûye ku heya niha tu tiştek din li holê de nebûye xêncî dabînkirina berjewendiyên girûpî. Lê helwêsta me di despêkê de heya niha li ser wê mijarê, eve bûye ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê ew cudabûne pê xweş nebû û gelek hewil jî dan, nermî nîşan dan û rêberiyê nedixwast ku ew hevalên me wê helwestê Lê piştre di yekmîn civîna Komîta Navendî de xêncî baskirin li ser zirarên wê hereketê bo Partiyê û ji bo Kurd, me gotiye ku ger her kes ji wan (ên ku çûne) weke tak vegere, di Partiya Demokrat a Kurdistanê de cih û karê wî diyar e, weke hin ji wan kesên ku vegeriyane bi rêz ve kar bi wan hatiye spartin. Bo mesela vegeriyana bi kom jî, pêwîstî bi rawêj û diyaloga du alî heye Lê jibo diyalog jî, pirsgirêk ek mezin li ser rê heye, ew jî ev e ku wan, navê Partiya Demokrat li ser xwe danîne û ew jî ligor bingehên Partiyê û hemû ew rênimayî û yasa û rêsa yên ku wan bi xwe biryar li ser dane ew, Partiya Demokrat a Kurdistanê ninin. Me daxwaz kiriye bona wê ku em bikarin bi hevre li diyalogê de bin, ji hev nizîk bibin û li ser hemî mijarên pêwîst axaftinan bikin, navekê ji xwe re diyarî bikin ku meydan ji wî karî re wala bibe. Xêncî wê jî, em wan bi dujminê xwe nizanin û niha jî me jêweye ku em dikarin hevkarî û peywendî ên dostane me hebin, lê heya niha asteng di pêşiya wê axaftinê de heye û ya ecêb ew e, ew aliyê ku bas ji yekgirtinê dike, bixwe mezintirîn asteng pêkanî, wan karek wa kir ku em nekarin bi hevre birûnên, hemû ew kar jî bi berqesd kirin. lê niha bûne bi nîşan û nimada yekgirtinê, ew piropagendeya ku lidarxistine, jî dil ve nine, eger wisan nebûya dikarîn navekê ji xwe re diyarî bikin em û li ser hemû wan meselane bipeyvin û bişêvirin, em jî derka wê yekê dikin ku yekbûn û bi hevre karkirin di pilatformek hevbeş û bereyekê de, Pir hewce ye.

Meseleyek din ewe ku ew hevalên me ên berê, berî çend salan carek din cuda bibûn, (piştî Kungira 8'ê) ku piştî heyamekê hat qebûl kirin ku dîsan vegerin nav Partiya Demokrat, lê dema ku zivirîn, dîsan helwestên xwe yên berê destpêkirin û vê carê kesên din jî ligel xwe de birin. Lewma çi garantî yek heye ku ew hevalane vê carê jî wisa nekin, Ji ber wê yekê ye ku em di wî warî de bi parêz ve gavan davêjin, em bi hemû jihev nizîkbûn û yekgirtinekê razîn e, lê bi mercekê ku li ser bingeh û esasekê be ku di rûniştina hevbeş de li serde sax bibin, eger ew jî neyê kirin, aliyê kêm em dikarin wek du partî û du alî bihevre kar bikin. Em di derbazbûyî de hevçeperên hev û hevalên hev bûne û renge em di warê bîr û boçûnên siyasî be ligel wan, zêdetir ji partiyên din ên Kurd ên Îranê ji hev nizîktir bin. ku waye me pê başe em bi hevre birûnên, lê wan asteng bo wê rûniştinê çêkirine. Komîteya derve a Partiyê, di daxuyaniyekê de ragihandiye ku eger ew vê astengê ji holê rakin, riya gotûbêj û diyalogê vedibe. Em daxwaz dikin ku xelk û dost, rû ji wan bikin heya ku riyek rast û usolî bigirne ber xwe û navek din ji xwe re diyarî bikin. Ewên ku du caran ji Partiya Demokrat vediqetin û her du caran jî seba meselên şexsî û girûpî cuda dibin û xwe jî bi Partiya Demokrat didin naskirin, we demê xelik jî rû ji me bike ku em bi hevre birûnên, lê ya baş ew e ku rû ji wan bikin ku navê xwe biguherin.



**Navê xwe biguherin heya biselmînin ku di îdîayên xwe de sadiq in û ewa ku dibêjin tenê teblîxat û piropagende nine**

**Bas ji wê yekê tê kirin ku we bi awayek baykot çê kiriye di dav qewara partiyê de û rê nadin ku kes hatin û çûna hevalên xwe ji aliyê beramber bike. eva çend rast e?**

Mesela baykotê li holê nine, çi li derveyî Kurdistanê û çi li başûr Di kor û civînan de ligel wan me beşdarî kiriye. Tu car nebûye ku me ji ber hebûna wan terka cihekê kiribe, têkilî û nemaze xizmatî heye li navbera pêşmergan de. Lewra mesele wisan nine ku wan bas jê kiriye. Derheq nav de jî, em bo xelkê diyarî nakin ku çi navekê ji xwe re dabinê, lê em daxwaz dikin ku navê me li ser xwe danenên. Li gor hemû yasayekê çênabe ku aliyek bi bê îzna aliyê din, navê wê li ser xwe bike.

**Tê gotin ku aliyê cudabûyî ji Partiyê, piranî ne û serokatiya wê jî**

**xwedî berpirsyarî û dîrokek ji tekoşînê di partiya Demokrat de ne, çawa dikarin navê xwe biguherin?**

Eve hêcetek lawaz e, partyê çarçoveyek diyar heye, sînorê wê çarçovê ji bo hemûyan cihê rêze, eger girûpek yan kesanek bi vê razî ninin, lê çimku di Partiyê de piranî ninin, sînûr nabezînin û di çarçoveyê de dimînin û bi ragirtina pirinsîp ên giştî çalakiyên xwe didomînin. Eger berevajî ,sînûr şikandin û ji çarçoveyê derçûn, îdî ew di wê qewareyê de ninin û ji pirinsîp ên giştî dûr ketine û dibin tiştên din ên cuda ji çarçoveya berê. Me gelek nimûne li vê derheqê de hene, mînaka dawîn ew kesane bûn ku berê di çarçoveya Yekîtiya Nîştimanî de û di serokatiya wê partiyê de dixebitîn Di zaf partyên din de jî ew mînak hebûn. Nemaze kesên karêzma û desteyek rêberî ji partiya xwe vediqetin û çunku kêmanî ne, diçin partiyek din ava dikin. Li gor esasnameyekê ku me bihevre biryar li ser daye û wê demê ew zorahî bûn, her li gor ew yasayên ku wan bi xwe pejirandiy e, ew Partiya Demokrat a Kurdistanê ninin, ku weye em nav bo wan dananên, belkî dibêjin navê me jî li ser xwe danenên.

**Ku weye yekemîn gav bo na asayî kirina peywendîy ên navbera her du alî yan divêt çi be?**

Ez bawer im destpêka wî karî dikare bi guhertina nav û danana navek din bo xwe be. Wan nîşan daye ku nav ji bo wan ne girîng e, çunku her di çend mehên borî de di derbarê got û bêjên bi rejîmê re ragihandin ku nav bo wan girîng nine, lê çima bo nizîk bûna ji Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê “ligor piropagende yên xwe” ewqas bi girîng dizanin? Eve jî di halekê de ye ku dibêjin em dixwazin ji Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê nizîk bibin. Eger bi rastî bawerî bi wan tiştan hene ku derbarê diyalog û nizîkbûn a bi Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê di bêjin û tesîr û karîgeriya wê li ser bizava Kurd û aliyên din, başe çima navê xwe naguherîn in? Erê gelo ew nav guherîn wê yekê naîne? Navê xwe biguherin heya biselmînin ku di îdîayên xwe de sadiq in û ewa ku dibêjin tenê teblîxat û piropagende nine. Bi raya min ew piropagende û teblîxatên bi wî awayî, cihê gumanê ye, lewre niha ez bawer im ku rêçare tenê ewe ku navek din bo xwe diyarî bikin, eger wê demê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê bi wan re ne rûnişt, bila hem ew û hem jî xelk gazindan bikin ku çima ligel Partiyek dost û heval narûnên û hevkariyê nakin?

**Eger ew tişt nehat kirin?**

Bila îdî xwe bi alîgirê ji ev nizîkbûn û yekgirtinê nezanin.

**we daxwaz ji xelkê kir ku rû ji wan bikin bo hevgirtinê, ew jî dibêjin ku her di destpêkê de daxwaza me ew bûye, lê we guh nedayê û daxwaz dikin ku dost û cemawer rû ji we bikin. Di vê navberê de kîjan ji we xemsar in?**

Ewa ku min bi kurtî bas jê kir, piroseyek siyasî “eger em bikarin wî navî li ser danên”a girûpeke ye ku du car ji Partiya Demokrat cuda bûne di heyamê kêmtir ji 10 salan de Tevgera Kurd Mişkê ceribandinê nine ku her roj di bin ceribandinan de be, carek din jî bihê ceribandin û vegerin û dîsan biçin. Ew xelke çend caran dibe ji aliyê girûpekê ve tûşî bêhîvîbûnê bibin û zirara desthilatxwaziya hin kesan bibînin ku li cihê hizrîn ji yekgirtin û hevxebatî yê bo gihîştin bi armancan, bîr ji berjewendiyên xwe bikin û her dema berjewendiya wan berteng bû, cuda bibin?

**Di peyamekê de lêborîn bo caş û çekdarên Kurd hat ragihandin, gelo ma dibe hêzek ku di desthilatê de nine bi tenê û bê rawêj li gel Partî ên din wê biryarê bide?**

**Tevgera Kurd Mişkê ceribandinê nine ku her roj di bin ceribandinan de be, carek din jî bihê ceribandin û vegerin û dîsan biçin. Ew xelke çend caran dibe ji aliyê girûpekê ve tûşî bêhîvîbûnê bibin**

ji ber wê yekê ku di nav Partî ên opozîsyona Kurdî de pilatformek hevbeş tuneye, rawêj û hevdengî li ser meseleyek wiha zehmet e û me ew yek nekiriye, ewa ku me jî ragihand, helwestek siyasî ye bo vejandina civaka Kurdî di pêşerojek nêzîk û di nemana Komara Îslamî de, mebest ewe nine ku Komara Îslamî piştî heyamek diyarîkirî ji nav here, belkî ez li ser wê bawerê me ku Komara Îslamî beşa zaf ji temenê xwe bihorandiye û di lêjiya temenê xwe de ye. Dema ev rejîme nemîne, komek pirsgirêk me hene ku pêwîste her ji niha ve em ber bi çareseriya wan ve bicin. Li nava Kurdanê di Îranê de boçûn û helwestên cuda hene û komek ji xelkê ku jiber zaf sedeman ketine dawika xiyaneta rejîmê û ji berjewendiya gelê xwe dûr ketine, em weke partiyek berpirsyar û ne ji bo niha, belkî divêt di hizra pêşerojê jî de bin ku di civaka me de çi diqewime, bîr ji tendurostiya civakê bikin, bo wê yekê gerek ji niha ve em mijûl bin û hin taboyan bişkînin. Yek ji wan meseleyan, ew xelke ye ku ketine telika rejîmê de, çi bihê kirin ligel wan kesane û çawan vegerînin nav sengera gel û niştîmanê? Helwesta me di wê derbarê de ev e ku min ragihand, hewce ye bi dilek vekirî ve bo wê meselê biçin û lêborînek giştî bi navê Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê rabigehînin, em ne wek nûnerê xelkê Kurd û ne jî wekîlê partên siyasî ên din, belkî wek Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê me ew biryar daye. Asayî ye ku mafê me be di warê pêşeroja Kurdistanê û berjewendiya xelk û welatê xwe de her gavekê bavêjîn, em wê yekê bi mafê xwe nizanin ku destkevta gelê Kurd û çarenivîsa wê têxin nav dan û standinên siyaseta şaş. Ez bawer im ku ragihandina wê lêborîna giştî di cihê xwe de bûye. Ew mesele jî tenê helwestek nebû, belkî ligel zaf ji wan kesan û berpirsên wan ên ku çek helgirtine, peywendî hatiye girtin û ya wan kesan hatiye kirin ku ji kiryara xwe ya derheq bi gelê xwe poşman bûne û dixwazin rêbaza xizmetê bigirne ber xwe, dibe wan riyane vala bikin û wê bawerê bidin wan kesên ku şaşî kirine û naxwazin dubare bikin, hembêza Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê ji bo wan kesane vekirîye.

**Zaf kes di wê bawerê de ne ku dijberiyên Demokratan û Komeleyan, astenga sereke ya pêkanîna bereya Kurdistanî ye. Raya we?**

Ewe beşek ji astengan e, lê hemû nine Her du Komele dizanin ku berî cudabûna her du alî yan em midehê du salan ketin got û bêjan û bo wê mebestê hewil hatin dayîn, lê em serketî nebûn. Me piştî Kongira 14’ê biryar girt ku em bi micit kar bikin bo ji hev nizîkbûna Partiyan û di wî warî de me çendîn car rûniştin ligel part û aliyan kir, lê dibe bêjim ku xalên nakok zaf in û eger wa nine bila aliyên din bi hev re rêk bikevin û Partiya Demokrat bihê perawêz xistin. Me di rûniştinên dawî de ligel part û aliyan de ragihand ku em amadene bi hev re kar bikin û serokatiya bereyê jî bila devreyî be û berdevkê wê jî bila her devreyî be, lê asteng hate pêş – ku pêwîst nine navê tu kes û aliyekê bînim- lê ewa ku dibêjin zaf ji wan Partiyan piropagende bi çêkirina bere yê dikin sadiq ninin, çunku dema dikeve qonaxa cî bi cî kirinê, meseleyek din derdixin holê û girêyan dixin nav karê han. Ew cudabûne jî bûne barê serbar, eger hevalên me ên berê navê xwe biguherin û em bikarin ligel wan birûnên, bê guman gavên sereke jî bo dubare anîne berbasa hevkariyên giştî yên hêzên Kurdî, dê li rojevê de be eger wa nebe. me pêwaye ku niha zemîne ya guncaw ji bo wê meselê nine, eger çi me pêwaye bihevre karkirin li ser meselên derheq bi xebata netewa me ji bo me aliyên siyasî ên Rojhilatê pêwîst e û divêt rojekê em bigîjnê.

### Dom di Ropela 1'an de

Birêz Mistefa Hicrî, di destpêkê de bas ji wê hindê kir ku: ew base hilgirê gelek civîn û got û bêjan e, lê ligor dema diyarîkirî dê hewil bidim ku bi kurtî ra û bûçûnên Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê derheq baykota bi nav hilbijartina gera 10'mîn a Serokkomariyê bînim ziman. Piştre jî îşare bi bûyerên piştî hilbijartinê bikim ku heya niha berdewam in.

Rêzdar Hıcrî got: Berî her tiştî dibêjim ku di Komara Îslamî de hilbijartin bitaybetî di asta bilind weke Serkomarî û Perlemanê, manayek tune. Eva ku bas ji hilbijartina Serokkomariyê yan Perlemenê dikin, tenê jêstek demokratîk e ku xwe weke hikûmetek serdemiyane û demokrat nîşan bidin û bibêjin di welatê me de hilbijartin heye û xelk desthilatdar e. Eve di demekê de ye ku di 31 salên derbasbûyî de 10 binav hilbijartinên Serokkomariyê û çendîn hilbijartinên Perlemanî hatine encamdayîn, lê hemû pêştir hatine amade û diyarkirin û komkirina xelkê tenê bo propaganda û nîşandana piştgiriya xelkê ji xwe bi cîhanê bi armanca nîşandana rewatî û meşrûîyeta xwe mifah jê werdigirin.




Di beşek din a axavtina xwe de, rêzdar Hicrî îşare bi bêparbûna jinan, ne bisilmanan û yên ne Şîî yan li desthilat û birêveberiya welat de kir. Paşan Hicrî bas ji nearamiyên piştî hilbijartinê kir û got: Dirûşim, bername nine û ew ceribînên ku me him li Îranê û him jî li welatên cîran li 50 salên derbazbûyî de heye, tu bizavek bi bê rêberiyek biryarder, demokrat û lîberal û bi bê bernameyek demokratîk nikare bigîje encama dilxwaz a xwe

# 17 Girtiyên Girtîgeha Bajarê Urmiyê Dest Dan Gireva Birçîbûnê

17 girtiyên siyasî ên girtîgeha bajarê Urmiyê bo nîşandana nerazîbûnê li hember belavbûna madeyên hişber di girtîgehê de, dest dan gireva birçîbûnê.

Li gor rapora Nûçegihaniya "HERANA"yê, piştî wê girevgirtinê hemû kesên girevgirtî bo hebsa takekesiya vê girtîgehê hatine şandin.

Vê çavkaniyê herwiha da zanîn, heta niha navên girevgirtiyan nediyar e û tê zanîn hinek ji girtiyên asayî di hebsên 1, 2, 3 û 4 a wê girtîgehê de, di rojên pêşiyê de tevî wan girevgirtiyan dibin.

# Ji Top, Tank Û Balafiran ve Bo Şere Mistan

**Baran**

Çend rojan berî niha Ehmed turk, Serokê Partiya hiloşiyayî a Civaka Demokratîk(DTP) li Turkiyê, kete ber êrîşa turkekî faşîst û şoven û bi wê yekê jî mijarek din bi koma mijarên germ û rojev ên siyasî li Turkiyê derheq pirsa kurd û reformên li Yasayên Bingehîn a wî welatî zêde kir. Turkekî faşîst û şoven ku hilgirê heman eqliyeta turkên tundajo ên destpêka avakirina Komara Turkiyê bû, bi mist û gotinên nebaş, êrîş kire ser Ehmed Turk. Heman kesatiyê ku di doma hewlên tundajoyên dijberê vebûna Turkiyê bi rûyê Kurdan de, bêy tu belgeyekî yasayî, mafê xwe berbijar kirin bo Parlementoyê û Serokatiya Partiyên siyasî li wî welatî de jê hatiye standin.

Eve jî heman berhemhînana eqliyeta ataturkî ye. Eqliyetek ku di warê fîzîkî ve bû sedema kuştina bi hezaran hevwelatiyên kurd, koça neçarî a bi milyon Kurdan û wêrankirina hezaran gundên Kurdistanê. Li warê derûnî ve jî şêwandin û têkdana nasnameya neteweyî a neteweyekê û hewildan bo helandina kultorek Zeytîn bi destê di nav kultoreke çek bidest û pir arîşe û êş û azarên din lê ketin.

Lê niha çi qewimî ye ku heman eqliyet ku di Sedsala 20'an de bi çek, top û tankan ve dest dabûne kuştin û jinavbirina gelê Kurd, lê niha di Sedsala 21'an de boseyê bo kesatiyên Kurd yên mafperwer didanên û bi mist û gotinên xirab û nebaş êrîşî dikin ser? Xwe niha di warê çek û teqemenî û alavên şer ve gellek bihêztir bûne û eve serê çend dehsalane jî ku bûne beşek ji Peymannameya leşkerî a "NATO"yê.



Bersiv eşkere ye, ji aliyekê ve niha li cîhanê de dewlet bi supa û arteşên xwe ve nahên naskirin û bicîhanîbûnê ewqas berjewendiyên aborî bihevre girêdane ku seqamgîrî û asayîşa rastîn bûye pêdviyeke here girîng û çemka xelkê jî li hember çemka dewletê de pir rengtir bûye. Ji hêla din ve jî gelê kurd him ji ber xebata berdewam û bêrawestiyan a xwe û him jî ji ber guhertinên cîhanî û deverî, ew qonaxe demek e derbas kirine ku êdî tûşî komkujiyan bibin û ne bi xwe bikarin berevaniyê ji xwe bikin û ne jî hawar û dengê wan negihîje tu ciheke. Eve, ew guhartin in ku xelkê niha baştir ji pêşiyên xwe têdigihîjin û hest pê dikin. Çunku serdemê demargirjiya netewî, îdeolojiya dogm û hişk, propagandeyên "gobilzî" û lidûketin û pêrewiya korkorane ji rêber derbas bûye û ji bal gelek takan ve bi dîrokê hatiye spartin. Evane, ew guhertin in ku Partiya desthilatdar a Dad û Pêşveçûnê(AKP) li Turkiyê de her çend bi rûyekî jî be, gaziya têgihîştina wan dike û bi wê têgihîştinê ye ku dixwaze Turkiyê bi rûyê Kurdan vebe û bibe endamê Yekîtiya Ewropayê û reformên yasayî jî têde bihên encamdan. Eve, ew guhertin in ku Kurdên Turkiyê xatircem dike û hêviyê dide wan ku di dawiyê de mafên wan dê li çarçoveya yasayê de bihên cihgîrkirin û dê dawiyê bi serdema reş a înkarê bînin. Lê şovenist tab û tehemmula vê pêvajoya cîhanî nakin û ger zora top, tank û balafirên wan jî nemabe, bi mist û gotinên nebaş, jehra xwe dirêjin. Lê bêhay ji wê ku di dema asmîli kirin û helandina bizorî de li cîhan û deverê de û bi zora top û tankên xwe ve nekarîn neteweyekê jinav bibin, niha ku tu derfet û rêyek gorî dilê wan nemaye, vê çawan bikaribin?

Berjewendiya xelkê Turkiyê bi Kurd û Turk ve, vê yekê dixwaze ku li hember kiryar û bîr û hizrên şovenîstî de bisekinin û rê nedin çarenivîsa wan bi rêyekê de bimeşe ku berevajî qazanc û berjewendiyên wan be.

## RONÎ

Quncikek ji bo şiroveya bûyer û babetan ji xwendevanên "Agirî" re



**Ebdulla Hicab**

# Salvegera "KURDISTAN"Ê

Salvegera weşana rojnameya KURDISTAN bîranîna yekem pêgava rojnamevanî di dîroka nû ya Kurdistanê de ye ku her sal di rojên dawiya heyva Nîsanê de tê pîroz kirin. Yekem rojnameya Kurdî bi çi tîrajek, li ku, di bin çi mercan de, bi çi armancekê û çi qas hate weşandin û çi karîgeriyek li ser dîroka edebiyata Kurdî û bi wê ve jî girêdayî li ser peyiva nivîskiye kurdî danî mijara lêkolînek dûr û dirêje akadêmîk e. Mebesta vê kurtenivîsê bi tenê bîranîna KURDISTAN u rêzgirtin ji pêşengê peyiva nû ya Kurdî, damezirêner û birêveberê rojnameyê, mamosta Midhet Bedirxanê her tim zindî û karîgeriya pêgava wî li ser nasnameya neteweiye Kurd e.

Çapemenî û edebiyata nivîskî di dîroka siyasî ye gelan de weke yek ji nîşaneyên here xurte bi netewebûn an hewldan ji bo xwe bi netewekirinê tên hesabê. Her çi qas civak pitir îmkanên bi dest xistina rojname û mesaja nivîskî ya xwemalî hebe, hin zêdetir û zûtir armancên tevgera neteweyî di nava civakê de tên bi cî kirin. Bi taybet di qonaxekê de ku pêwîste mesaja tevgera neteweyî di nava civakê de were belav kirin, rola rojname û mesaja nivîskî xurttir dibe. Ji ber wê yekê heke yek ji girîngîyên "Kurdistan"ê aliyê wê yê edebî û rojnamevanî be, giringîya bingehîntir aliyê rojnameyê yê neteweyî bû.

Weşana rojname û kovaran nîşaneya xwegirtina bingeha jiyana siyasî û rewşenbîrî di civakê de ye. Lewma jiyana rojnamevanî û tevgerên neteweyî her tim bi hev re meşyane. Tevgerên neteweyî bi riya xebata rewşenbîrî û rojnamevaniyê mesaja xwe ya siyasî û neteweyî digehînin alîgirên xwe. Li Kurdistanê jî rojnamevanî û têkoşîna neteweyî bi hev re girêdayî ne û her du xwediyê dîrokek hevbeşin. Bi gulvedan û geşbûna xebata neteweyî re xebata rojnamevanî jî geş dibe û bi pêşveçûna xebata rojnamevaniyê re tevgera neteweyî pitir ciyê xwe digre. Li Başûrê Kurdistanê sala 1922 û li pey re jî salên 1940, 1950, dema şoreşa nû di salên 1960 û pêve û di qonaxa dawî de ji sala 1991 ve rojnamevanî û tevgera neteweyî bi hev re jiyan û geş bûn. Li Rojhilata Kurdistanê, xên ji demek kin li sala 1914, tenê di bin siya tevgera neteweyî de weşana Kurdî çavê xwe vekir. Di qûnaxek kurt ya salên 1945-46 de jiyana rojnamevaniya Kurdî li Rojhelata Kurdistanê dest pêkir. Bi şikestina tevgera Kurdî re, moma jiyana rojnamegeriya Kurdî jî vemirî u tenê bi serhildana dubareye tevgera neteweyî li salên 1980 û pê ve dubare rojnamevanîya Kurd wejiya. Li Bakûrê Kurdistanê salên 1920 heya destpêka 1990 şeva jiyana rojnamevanî u edebiyata Kurdî bû. Tenê bi serhildana neteweyî ji salên 1980 re û bi geşbûna tevgerê di salên 1990 de rojnamevaniya Kurdî dest bi jiyanê kir.

Dema Midhet Bedirxan dest bi weşana "Kurdistan"ê kir, wê demê rojnamevaniya Ereb, Tirk û Fars di qûnaxa bi cî kirina karîgeriya xwe li ser her yek ji civakên Ereb, Tirk u Fars de bûn. Yekemîn rojnameya Erebî ji sala 1820ê, ya Tirkî ji sala 1832 û ya Farsî jî li sala 1848ê ve dest bi weşanê kiribû. Di wê demê de tevgerên neteweyî li cem her yek ji wan gelan di qûnaxa gulvedan û vegeşînê de bûn û pêvajoya şiyariya neteweyî di wan civakan de destpê kiribû. Peyiva nivîskiye hevdem êdî ji qalibê nivîsên olî û şerîetê derketibû û weke mesajek nû ya siyasî, kultûrî û edebî ketibû jiyanê û pêvajoya guhertinê dabû destpê kirin.

Ji bo gelê Kurd û qedera siyasî a Kurdistanê vebûna deriyê rojnamevaniyê di sala 1898'na de bû destpêkek ji bo ku di wê meydanê de Kurd hebûna xwe, weke netewe nîşan bide. KURDISTAN yekemîn bersiva netewa Kurd ji bo hewldana bi serdest kirina zimanên cîran di welatê Kurdan de bû. Ji ber wê yekê, cihê yekemîn rojnameya Kurdî di dîroka netewa me de hem weke rojname û hem jî weke *nasname* xuya ye. Her çend KURDISTAN li dervey welat û li Qahirê, ku wê demê di bin destê Birîtaniya Mezin de bû, li dayîk bû, lê girêdana wê ya bi Kurdistanê re xurt bû û her carê 2000 hejmarên wê bo welat dihatin şandin. Mixabin qedera KURDISTANÊ jî weke qedera welat, li salên piştî 1900 u pêve rastî karesat û bûyerên bi êş û keser bû.

Lavikê kû nû çavên xwe vedikir, berî kû bigehe miraza xwe, rastî mal barkirin, koçberî, penaberî û helat-helatê hat. Ji Qahirê berê xwe da Ewrûpa, çû "London", "Folkstone" û "Geneve", lê tu car maka xwe û warê xwe ji bîr nekir. Her tim berê wê li Kurdistanê bû û bi evîna welat jiya. Di sala 1902 de jî gava ku ji bo demek dirêj mala xwe bar kir û çû diyarê kes nezanan, her bi hêvî bû ku rojekê vegere bersingê germe welat. Lewma, di gel westanek demkî, lê paşan bi rengek din ,bi xemlên nû, bi navên din, dubare serî hilda u ev car li wargeha xwe, li Kurdistanê dubare hate weşandin.

Sala 1908 "Kurdistan"eke nû, ev car bi bergek din zivirî welat, lê dîsan rastî beko û şofaran hat û bi neçarî dubare xwe veşart. Her di wê salê de kovara klûba nûavabûyî ya Kurd *Cemiyeta Terreqî û Teaalî Kurdistan* hate weşandin. Êdî Kurdistanê her sal KURDISTANeke nû anî ser rûyê cîhanê. Sala 1913, "Roja Kurd" û "Yekbûn" bi cêvî û bi hev re ketin dawêna welat. Sala 1914 dîsan "Kurdistan", "Bangî Kurd" û piştî sala 1917 heya 1920 ji bo du carên din "Kurdistan" û rojname û kovarên kurdî yên weke "Bangî Kurd", "Jîn", "Têgeyştinî Rastî" û "Pêşkewtin" ketin ber destê Kurdîxwanan.

Êdî dayka welat bê hêvî nebû û bawerî peyda kir ku KURDISTANa 1898 nemir e u wê heta welat hebe, nav û nîşaneyên yekem rojnameya Kurdî jî her zindî bimîne. Pêvajoya siyasiye ku piştî sala 1923 bi perçebûna dubareye Kurdistanê dest pêkir, jiyana siyasî û rojnamevaniya Kurdî xiste qûnaxek pir dijwar û beşeke zimanê Kurdî xiste ber êrişa tune kirinê, lê bingeha kû "Kurdistan"ê danîbû her zindî ma û bû çavkaniya hêviyek nû.

Dema "Kurdistan"ê dest bi weşanê kir tevgera neteweyî jî bi pêş ket, lê bi sekinîna weşana Kurdî, tevgera neteweyî jî paşve gav avêt. Salên di navbera 1902-1908, 1909-1913 û 1914-17 de Kurd bê rojname bûn û ev rojnameyên kû derdiçûn jî li Kurdistanê belav nedibûn. Lewma tevgera neteweyî jî di wan salan de bêdeng ma.

Niha, 112 sal piştî pêgava pêşeng, rojnameya KURDISTAN ji bo nivşa nû ya rojnamevan û çalakvanên meydana weşana nivîskî bûye çavkanî û xezîneyek giranbuha. Lê ji wê hê giringtir, ev nivîsên zêrîn bûne çavkaniyek bi bawerî ji bo dîroka guhertinên siyasiye Kurdistanê ji sala 1898 û pê ve.

112 sal piştî weşana yekem rojnameya Kurdî pêwîste cîhana rojnamevaniya Kurd rola xwe ya pêşrew di jiyana siyasî ya civakê de hê pitir bilîze û bibe pêşengê têkoşîna ji bo gehandina mesaja neteweyî bo nava civakê. Gelê Kurd îro li her demê pêtir pêwîstî bi rojnameyên serbixwe û neteweyî heye ku bikaribin armancek hevbeşe neteweyî bibin pêş û Kurdan weke yek netewe û xwediyê qedera hevbeş bi hevre girê bidin. Zimanek hevbeşe rojnamevanî û mesajeke hevbeşe neteweyî ew pêwîstî ye ku pêşengê rojnamegeriya Kurdî di sala 1898 de bingeh jê re danî û tê hêvî kirin ku nivşên nûye rojnamevanan û rojnamevaniya hevdeme Kurdî wê erkê dîrokî bi başî bi cîhbîne.

# Dr. Mehmûd Osman Seredana Deftera Siyasî A PDKÎ Kir



Siyasetvan û kesayetiyê nasyar yê Kurd û endamê Perlemana Îraqa Federal, Dr. Mehmûd Osman roja înê, 27'ê Xakelêwê, serdana Deftera Siyasî a partiya Demokrat a Kurdistana Îranê kir û ji aliyê heyeteke partiyê bi serperestiya Mistefa Hicrî, Sekreterê Partiyê ve bi germî hat pêşwazî kirin.

Nûçegihaniya Kurdistanê di wê peywendiyê de ragihand, di rûniştina navbera her du aliyan de Mistefa Hicrî, pîrozbahiya germ a xwe bi boneya dubare hilbijartina wî bi endametiya parlemana Îraqê, ji Dr. Mehmûd Osman kir û bi dosteke wefadare Hizba Demokrat da zanîn.

Piştre Dr. Mehmûd Osman, Hizba Demokrat a Kurdistana Îranê bi partiyek siyasî û bi bandor û xwedî dîrokek pir ji şanazî da zanîn. Di dirêjiya rûniştinê de çendîn basên peywendîdar bii guhertinên Rojhilata Navîn û karîgeriya wan li ser pirsa Kurd hatin şirove kirin.

# Binkeya Besîc Li Devera Mirgewer Kete Ber Êrîşa Çekdarên Nenaskirî



Şeva pêncşemî, 26'ê Xakelêweya 1389'ê, binkeya Besîc li gundê Dizê ya devera Mirgewer ji aliyê çend çekdarên nenas ve kete ber êrîşa çekdarane.

Nûçegihaniya Kurdistanê di wê derbarê de ragihand ku kiryara han bûye sebeba keyfxweşiya xelkê û tirsa kirêgirtiyên rejîmê jî di wê deverê de zêde bûye.

Hêjayî gotinê ye ku heyamê du hefteyan e ku hêzên rejîmê di wê deverê de bi wê hincetê ku kasibkar azar û êşê didin cotyar û xelkê deverê, çûne cihê navhatî û lêpirsînê ji kasibkaran dikin. Wan hêzan heya niha çend ser ji dewarên kasibkaran kuştine.

# Rojev: Qirqîzistan, Peyam Û Şîretek Bo Dîktatoran



**Selîm Zencîrî**

Qirqîzistan welatek biçûk yê Asyaya Navîn e ku piştî hiloşîna Yekîtiya Sovyetê, bûye komarek serbixwe. Piraniya xelkê wê ji bisilmanan pêk tê. Wî welatî du nawend û pêgehên leşkirî yên girîng yên Amerîka û Rûsyayê li xwe de cih dane. Anku piştî hiloşandina hikûmeta Taliban li Efxanistanê de, Qirqîzistan bûye giringtirîn pêgeha locestîkî ya hêzên Amerîkî bo wî welatî(Pêgeha Manas).

Di sala 2005'an li encama şoreşekê de, hikûmeta Qorban Baqiyov bi qewl û dirûşmên derevîn û, xapînok yên aborî û siyasî hate ser kar û bi wan sozan asta daxwazî û çavnihêriyên xelkê jorde bir. Lê li dema desthilatdariya xwe de ne tenê sozên xwe bi cih neanîn, belkî bûye hikûmetek dîktator, tepeserkar û gendel û bi wan zulm û zoriyan, moma xebat û serhildana xelkê dijî xwe teyîsand. Di encam de piştî 5 salan temenê reş yê desthilatdariya Qorban Baqiyov, agirê serhildanê li çarşemiya borî de gihîşte kopika xwe û nerazî û girûpên opozîsyonê, hikûmeta wî hiloşandin û ew jî neçar bi helatinê kirin û hikûmetek demî jî pêkanîn.

Herçend ku welatên Asyaya Navîn û yek ji wan jî Qirqîzistan, heya qasekê bûne bi qada hevrikiyên Rojava û bi taybet Amerîka bi Rûsyayê re û her yek ji wan jî bi awayekê dixebitin ku nifûz û desthilata xwe li wî welatî de zêde û xurt bikin, lê ma destrêwerdana wan welatên superhêz bûye sebebê hiloşîna hikûmeta Qorban Baqiyov? Yan zext û givaşên siyasî û aborî, xelkê Qirqîzistanê anî ser şeqaman û neçar bi şoreşê kirin?

Ya rast bingeh û reh û rîşala wan nerazîbûnan dijî hikûmeta Qorban Baqiyov li encama bêser û beriyên aborî, berçavnegirtina daxwaziyên xelkê, fesad, zulm û zoriyê û herweha gelaleyek şibî"Mebestdar kirina yaraneyan" li Îranê de bû. Gelaleyek ku feqîr û hejaran hejartir, welat jî bi kirîzên aborî û siyasî yên zêdetir berbirû dike. Anku bi çend beramber bûna nirxa kala, alav û hewcehiyên jiyanê, bi taybetî nirxa av, elektirîk û şevatê, helawsana aborî, fesad, birçîtî û givaş ketine ser qata hejar û kêm dahat, ji bilî şoreş û serhildanê dê çi li pey xwe re bîne?

Ma bi sînordar kirina azadiyên siyasî û raderbirînê, guhnedan bi daxwaziyên xelkê, girtin û dest bi ser kirina rexnegiran, daxistina rojname û belavokên serbixwe û rexnegir, dê çiqas bikarin jiyê hikûmetên xwe dirêj bikin? Ma çi hikûmet û desthilatek bi tepeserî, hovêtî, gendelî, talankirina samanên giştî, li tengasî xistina



xelkê, malbatî kirina desthilatê û dîktatoriyê, karîn û şiyana razîkirina xelkê û bêdengragirtina wan heye?

Ma ew xelke heya kengê dê bikarin tab û tehemola zulm û stema wan bikin û dest li ser dest li çavnihêrî û li benda guhertinan de birûnên?

Lê bûyera Qirqîzistanê nîşan da hikûmetek ku li ser bingeha îradeya xelkê û pişt qahîm bi xelkê nebe û bikeve çepera dijî xelkê xwe, dê temenek kurt hebe û vîn û îradeya yekgirtî a xelkê dê li ser wan de bi ser bikeve û weke bahozekê, dê text û bextê wan têk bide.

Her ew zulm û zordariyên ku 31 sal in li Îranê de ji aliyê rejîma Komara Îslamî ve bi ser xelkê bê berevan yê wî welatî birêve diçin. Cinayet, derd û elemên ku gelek zêdetir ji yên Qirqîzistanê ne û xelk jî bi hikûmetek gellek hovtir ji ya Qirqîzistanê ber bi rû ne. Lewma ew serhildan û nerazîbûnên ku midehek e li Îranê de jî çilû dane û hinde nemaye ku bigihîjin berhem û encama xwe, berhema karnameya reş û tejî tawan a Komara Îslamî derheq gelên Îranê ye ku ji hemû aliyan ve xelk dorpêç kiriye û mecal û fersenda bêhn kêşanê jî ji wan standiye. Niha jî serbarê wan hemû pirsgirêkan, bi gelaleya "mebestdar kirina yaraneyan "dixwazin zulma xwe çend qat zêde bikin û bi wê yekê jî gotina pêşiyan ku" Gulê gelek gul bû!! vêca baranê jî lêda şil û mil bû" tîne bîra mirov. Çunku hikûmetek kû daxwaziyên xelkê berçav negre, hejarî û belengaziyê ji wan re bike diyarî, ji sifreya xelkê diziyê bike, dengê xelkê bidize û wan tepeser bike û ji hemûyan jî girîngtir ji meşrûiyeta xelkê bêpar bimîne û ..., eşkere ye ku dê bi çarenivîsa Qirqîzistanê re ber bi rû bibe û dê bi destê xelkê ve bo kirsdanka dîrokê ve bihê avêtin.

Bi giştî hiloşîna hikûmeta dîktator a Qirqîzistanê bi destê xelkê, serbarê wê ku tirs û xofek mezin xistiye nav dilê karbidetên Komara Îslamî herweha ku peyam û şîretek mezin e bo desthilatdarên Îranê ku heya ser nikarin li hember îrade û xwasta xelkê de rawestin. Ji hêla din ve jî vîn, îrade, biwêrî û rohyeya gelên Îranê jî bo xebata dijî dîktatoriyê pêtir û qahîmtir kiriye. Lewma ew qehremanetî û cangoritiya xelkê Qirqîzistanê rasterast tesîr û bandor li ser xelkê Îranê heye û enerjiyek zêdetir dide wan bo hiloşandina rejîmê, bûyer û qewmînek ku her dem îmkana rûdana wê heye.

# Gola Urmiyê Ber Bi Ziwabûnê Diçe



**Azad Kurdî**

Di çend salên borî de, asta ava Gola Urmiyê heta 6 metr kêm bûye, bi awayekê ku hin kes dibêjin bêhnên dawiyê dide. Niha pisporên warê jîngehê ji her demê zêdetir nigeranê ziwabûna Gola Urmiyê û dawîhatina temenê vê sermaya netewî dikin.

Qasê Çend salan e ku pirsa kêmbûna ava gola Urmiyê û xetera ziwabûnê wê golê bûye mijara rojevê û her aliyek bi awayekê pirsê şirove dike. Lê dema mirov asta niha ya ava golê li gor çend salên borî dide berhev, ne tenê nigeran dibe, belkî sedî sed metirsiya ziwabûna wê dikeve mêjiyê mirov.

Rayedar û dezgehên Komara Îslamî di van çend salên borî de, bê baldan bi nigeranî û şîretên pisporên warê jîngehê, tu tedbîrek bo rizgarkirina golê nemeşandine. Belkî ji xeynî hişkesaliya çend salên borî, bi projeyên cur bi cur nemaze çêkirina bendavan li ser çem û çavkaniyên sereke yên ava xursitî ya golê, çend qat zêde alîkarî dane proseya ziwabûna wê. Ji ber ku wan tu gav bala xwe nedane nerîn û pêşniyarên karnas û pisporên warê demografî û jeolojiyê derbarê metirsiyên ziwabûna gola Urmiyê.

Di çend rojên borî de, civîna sedan kes ji xelkê sivîl ê Urmiye û Tewrêzê li ser beravên gola Urmiyê, bi nîşana nerzîbûn li hember xemsariya dewletê bo çaresernekirina kirîza golê têra xwe balkêş bû. Sedan kes ji welatiyên sivîl ên wan du



bajaran, di meşeke aştîxwazane de ber bi golê meşiyan û bi şerbik û alavên biçûk av rijandin nav golê. Bi vê tevgera sivîl û sembolîk, xelkê wan du bajaran nigeranî û nerazîbûna xwe li hemberî bêdengî û xemsariya karbidestan li hember ziwabûna ava gola Urmiyê dan xuyakirin. Lê wek edetê hercar yê hêz û karbidestên Komara Îslamî li hemberî çalakiyên sivîl û aştîxwazane jî, li cihê ku bersiva beşdarên vê meşa sivîl bidin, zêde yî 100 kes binçav kirin û wekî hemû liv û tevgerên herdemî yên xwe ligel meş û nerazîbûnên xelkê tevgeriyan. Vê meşê dubare bala civakê kişand ser kirîz gola Urmiyê.

Kirîza ziwabûna ava gola Urmiyê ewqas cidî ye ku niha erdên ku berê hemû av bûn, bûne girên sipî û erdê wê zêde wek kifneke sipî dikeve berçav ku li benda mirinê ye.

Gola Urmiyê bi rûberê 5 hezar û 200 kîlometrên çargoşe, gola herî mezin ya Îranê tê hesibandin ku ava wê sûr e û 102 giravên biçûk û mezin hene. Di giravên golê de çendîn corên ajel û balindeyan dijîn, niha kêmbûna ava gola Urmiyê metirsiyê li ser jiyana wan jî pêk tîne.

Karnaseke pispor di warê jîngehê de ku ji ber pirsgirêkên ewlekariyê nexwast navê wê were eşkerekirin, di daxuyaniyekê de sedemên kêmbûn û paşdeçûna ava gola Urmiyê wiha şirove kir: "Di rastî de, gelek sedemên vê kirîz yan em bêjin karesata mirovî û jîngehê hene. Lê yên herî giring ev in; Hişkesaliya navbera salên 2000 heta 2007an, lêdana zêde ya bîrên avê li herêmên derdora golê û bikaranîna ava wan bîran, çêkirina çendîn bendavan li ser çemên mezin ku çavkaniya ava vê golê pêk tînin, wek çemên Nazlî, Berandêz, Beresor û wd... . Herwiha çêkirina bendava mezin a Lîqwan li bajrê Tewrêzê, çêkirina cada navbera bajarê Urmiye û Tewrêzê – naskirî bi Kelanterî - ku ji naverasta vê golê derbas dibe ku bûye sedem dehan ton alav û amûrên giran û axê bo nav gola Urmiyê bên rijandin û kûrahiya wê jî kêmtir be. Sedema din baran nebarîn û ziwabûna ava kanî û çavkaniyên xwezayî yên golê û germiya seqayê dibe sedema bûne helm a avê û li encam de zêdebûna sûratiya ava gola Urmiyê ku xêyeke zêde li derdora cihên hişkbûyî û kêmav bi cîh dimîne."

Vê çavkaniyê ji bajarê Urmiyê eşkere kir; bo pêşîgirtin ji kêmbûna zêdetir ya ava vê gola Kurdistanê, gelek mekanîzmên guncaw û jêhatî hene ku di çend salên borî de, wek pisporên vî warî pêşkêşî berpirsên Komara Îslamî kirine, lê tu gavek nehatiye avêtin û berpirsyariya vê kirîza mezin a jîngehê dikeve stûyê wan û divê bersivderê civakê bin.

Pisporên warê jîngehê û çalakvanên sivîl û xelkê Urmiyê bi giştî, nigeranê rewşa aloz ya kêmbûn û ziwabûna wê gola bedev in. Ligel ku zêdeyî 10 sal dibe ev kirîz rastî gola Urmiyê hatiye, lê tu mekanzîmeke cidî û kêrhatî ji aliyê karbidestên Komara Îslamî nehatiye hilgirtin. Hemû aliyek jî, siyasetên şaş û xemsariya berpirsyarên hikûmetê wek sebebkarê xurtbûna vê kirîzê dihesibînin.



# Jin Di Erebistana Seûdî Û Îranê De



Ceifer Mubeşirniya

Erebistana Seûdî yek ji wan welatan e ku hertim dikeve ber rexne û gazindeyên navendên navnetewî ên çalak di warê mafên jinan de.

Hikumeta wî welatî bi eşkere cudahiya navbera jin û mêran di Yasaya Bingehîn de pejirandiye û bi awayek tund jî tê birêvebirin, herweha gihandiye astekê ku sînûrdarkirina jinan di wî welatî de ji aliyê xelkê sîvîl ve weke çandek tê parastin. Weke mînak, destdirêjiya cinsî a bi kom ji aliyê çend kesan ve bo ser jinekê, piştî şikayet ji aliyê jinê ve hukmê wê dibe girtîgeh û qemçî lêdan ku çima bi tenê siwarî turumbêlek biyanî bûye u..., dikare teibîr a zaf li binpêkirinên mafên jinan di wî welatî de bike. Diyare eve di demekê de ye ku 70 ji sedî ya xwandekarên zanîngehên wî welatî ji jinan pêk tê. lê tenê 5 ji sedî a wan di kar û barên welat de beşdar in, ku di aste here nizm a cîhanê de ye.

Ligel wê rewşa xerab a jinan li Erebistanê de, heftiyek berî niha ligor nûçegihaniya jinên Îranê: jinên Erebistana Seûdî serketinek mezin bidest xistin. Ew jî mafê seferkirin bi tenê yan jî bi bê hevrêtiya hevjîn yan kes û karên xwe di welatên hewzeya Xelîca Fars de weke Behrîn, Kuwêt, Oman, Qeter û Îmarata Yekbûyî ya Erebî bû. Diyare bi hewlên zêde ên Melik Ebdulla Paşayê wî welatî ku eve



cara çendê ye taboyan dişkîne û jinên bêparkirî ji mafên siroştî yên xwe di Erebistanê de bi awayek sînûrdar di hin waran de hatin îzin dan ku cihê keyfxweşiya xelkê wî welatî û cîhanê.



Weke serketinek din a jinan hat nirxandin.

Lê eger em bas li binpêkirina maf û tepeserkariya jinan ji aliyê hikumetên nedemokratîk ve bikin û ji aliyek din ve çav li bizava jinan û pêvajoya pêşketinxwazane a wan bikin û haydarî rewşa jinan bin, dibînin ku li welatê Erebistanê de ew pêvajoya han her çiqas lawaz û bê hêz be jî, lê ber bi pêş gavan hildigere. Lê ewa ku bikare rûyê reş ê Erebistana Seûdî di nav welatên dij bi maf û azadiyên jinan de sipî bike, însafen ew qas nine ku di welatek din yê şirîk di cinayetên dijî jinan weke Îrana bin lepên Komara Îslamî de heye. Vêca ji qedexekirina maf û azadiyan ve bigre heya bertengkirina qada xebat û tekoşînê ji jinan bi taybetî di Yasaya Bingehîn de. Çunku her nebe îzna ajotina turombêlan û seferkirin ji jinên Îranê re hebûye. Ewa ku xeterek mezin e, bizava berevajî wê pêvajoyê ye ku niha di Erebistanê de ber bi başbûnê ve diçe ku eger 30 salên derbazbûyî ên her du welatan bidin berhev tê xuyakirin ku Erebistan di tunebûnê de çend qûnaxn pêş ve çûye û Komara Îslamî di qûnaxek hinek baştir de jinên Îranê gihandin çi qûnqxeke bi şerim ku îro dibe tevî jinên Erebistanê bên berhevdan. Her weke amaje pê hat kirin cudahiya di navbera jin û mêran di welatê Erebistanê de di yasaya bingehîn ya wî welatî de hatiye, lê ew cudahiya ku ji navbera wan du regezan di yasaya Komara Îslamî de hatiye, ya herî berçav hicaba bizorî û azadiya pir jiniyê ye ku di rastî de li asta wan cinayetên ku di derveyî wê yasayê de derheq bi jinan tên kirin, ne pirsên zaf girîng tên hesibandin, belku eva rojane ragihandinên bê sînûr li ser cinayetên wê rejîmê dij bi jinan dixin ber çavên raya giştî,

Yek ji sedê rûçkê biyome Komara Îslamî li hember jinan de ye, çunku eger qedexe bûna ajotina turumbêlan û bi tenê çûne nav bazaran li Erebistanê binpêkirin mafên jinan be, xwe bikaranîna madeyên hişber û leşfiroşî jî aliyê jinan ve ku sebebê bingehîn yê wê Komara Îslamî ye, li ser şeqam û bazarên Îranê cinayet dijî mirovahiyê tê hesab. Eger li welatê Erebistanê carê wekheviyek di navbera jin û mêran de nehê xuya kirin. lê wê dawiyê bi cehd û tekoşîna karbidestên wî welatê serkevtinek nisbî bidest ketiye, lê Komara Îslamî a Îranê jî wê dawiyê serkevtinek jî serkevtinên şîweya xwe bidest xistiye, ew jî mafê wekhev di navbera jin û mêran de bû li warê girtin, îşkence, destdirêjiyên cinsî, kuştin û îdamê de.

# Zarokên kêmendam li parêzgeha Sîstan û Belûçistanê de pir zêde dibin



Parêzgarê Sîstan û Belûçistanê di rûniştinekê de ragihand: Hejmara zayîn, merg û mirina dayik û zarokan di wê parêzgehê de, yek ji pirsgirêkên eslî ye ku geşekirina deverê tûşî arîşeyan kiriye û nebûna fêrkariyên pêwîst ên malbatan di gundan de bûye sedema pirsgirêkên abûrî û ji dayîkbûna zarokên kêmendam.

Di doma gotinên xwe de anî ziman ku: carna tê dîtin di malbateke gundan de, 7 zarokên kêmendam ji dayîk bûne ji bo wê yekê pêngava yekim bo rewşa tendurostiyê pêwîste bernameyek bo pêşketina çandî û fêrkariya malbatan bê danîn.

warê madî de zirarên gelek mezin digîjîne welat.

## Ehmed Bazguşayî, Pêşmergê Kevnar Ê PDKÎ Çû Ser Dilovaniya Xwe



Roja 10'ê Nîsana 2010'an, Ehmed Bazguşayî, Pêşmergê kevnarê PDKÎ bi sedema nexweşiya mîde di nexweşxaneya Rizgarî a bajarê Hewlêrê de çû ser dilovaniya xwe.

Şehîd Ehmed Bazguşayî, sala 1953'an, hatiye dinê û her di temenê zarokatiyê de tevî malbata xwe bi merama geşandina rewşa aborî çûne bajarê Sine û di vê derê de akincî bûne.

Şehîd Ehmed Bazguşayî, hevdem tevî serhildana Şoreşa sala 1979'an, di Îranê de wek Kurdekî welatparêz hat nav refên PDKÎ û dijî rejîma Komara Îslamî a Îranê di demên şer de beşdariyekî çalakane û berçav hebûye û her di vê pêxemê de sê caran bi dijwarî birîndar bibû.

Tê zanîn termê pîroze vî şehîdî her di vê rojê de li goristana Şehîdan li Koyê de hat veşandin.

Hêjayî gotinê ye roja 10'ê Nîsanê di binkeya Polîtbîroya PDKÎ, rê û resma vî şahîdê bi beşdariya endamên rêberiya PDKÎ, kadro û pêşmerge û malbatên pêşmergan hat lidarxistin. Di vê rê û resmê de Rostem Cehangîrî, endamê Deftera Siyasî a partiyê kurteyek ji jiyan û xebata şehîd Ehmed Bazguşayî pêşkêş kir.

## Tirkiye Bi Dana Xisaretê Bi Penaberên Îranî Mehkûm Bû



11 kes ji penaberên Îranî û Tonisî derheq riftarên nebaş yên memûrên turk li gel akinciyên kempên koşber û penaberan, dozgeriya mafê mirov a Ewropa li Strasborgê doz vekirin û wê dadgehê jî ew doz pejirand û ji dewleta Tirkiye re hukmê 9 heta 26 Hezar Eeuro xisara malî kir.

Şêrzad Feramerzî nûşegihanê "Waşîngton Postê" di raporekê de îşare bi nizîkatiya Îran û Tirkiyê dike ku Îran girîngtirîn berhemhînerê gaza siroştî a Tirkiyê ye.

Di dirêjiya wê raporê de hatiye ku hin ji penaberan şikayet ji wê yekê hene ku berdewam ji aliyê sîxurên ewlehî ên Komara Îslamî ve bi riya telefon yan fîzîkî ve gef ji wan tên kirin yan dikevin ber êrîşên wan.

Li gor saziyên mafên mirovan, sîxorên Komara Îslamî li hewla nifûzkirina li nav penaberan, pêkanîna rewşek nearam û nehiştina bawerê di navbera wan de û herweha neçarkirina wan bi vegeriyan bo welat e.

## Îran 7'mîn Welatê Bikarînerê Alavên Arayîşê Di Cîhanê De Ye.



Encama vekolînekê li Firansa der dixe ku Îran welatê 7ê ye ji bo bikar anîna alavên arayîşê. LI gor wê hersal Îranî salane 1\5 mîlyard "Euro"dikin xerca alavên arayîşê û di pileya 7 ê de cih digirin.

Rojnameya Dîrtêt bilav dike ku Îran 30 ji sedê a bazara pêdawîstiyên arayîşê di Rojhilata Navîn de pêktîne û 14 milyon jinên Îranî di temenê 15 heya 45 salî di bajêrên mezin de, her meh 6 Euro dikin xerca arayîşa xwe.

# Sitûnek Rizî

**Kewê zer**

Îran welatê kevnar, xwedî çand, dîrok û samanên siroştî ên dewlemend e ku hertim bala dewlet û welatên din ên cîhanê kişandiye. Welatek ku heya niha jî desthilatên siyasî ên wê, nekarîne xizmetek bi gorî pêkhateya wî welatî di pêxema pêşketina welat de bikin. Çunku heya niha jî tu desthilatek hakim bi ser welat de bi xwast û dengê dilxwaze xelkê desthilat bi dest negirtiye.

Desthilatdarî bi ser xelkê xwedî çand û dîrok û herwela welatek sitratîjîk weke Îranê de, bê guman dê bibe serek ji nav seran di mijarên siyaseta derve ya welatên girîng ên cîhanê de, lewma bidest ve girtin û guhertina desthilatan di wî welatî de, bi liberçav girtina orfên siyasî ên Rojhilata Navîn, tim tundûtûjî û xwîn rêtin hebûye.

Heya îro desthilata dawîn di wî welatî de anko Komara Îslamî a Îranê, dîroka reş ya 30 saliya xwe kiriye şahidê vê yekê ku bi tu awayekê hêja û jêhatê baladestî û desthilatdarî bi ser xelkê Îranê de nine.

Ji bo ku xelik bi awayekê bêdengiya xwe bişkîne û eger carê nekare wê siya reş li ser xwe hildin, bi qenaet gihîştine ku bi vekişan ji rejîmê û walakirina bin piyê wê karîne û hêj jî dikarin wê desthilata nexwastî bê paye û esas bihêlin. Her di wê derbarê de rejîm bo ragirtina siya xwe, ku bêguman bi bê civatên xelkê nikare raweste û ji aliyek din bawerî û hitbarnekirin ji xelkê wa kiriye ku tenê mifahê ji kesên xweyî "mehrem"ên xwe werbigre û her wan jî bi xelkê wefadare Îranê dide nasîn. Ew kome ji xelkê ku bi salan e di xizmeta rejîmê de destên wan bi xwîna xelkê xwe sor bûye, hemû pirên pişt xwe şikandine û tu rêek vegeryana nav himbêza gel û xwe derbazkirin ji destê rejîmê de nehiştine, hem sitûnek rizîne û hem jî bûne armanca pêlên bihêz ên nerazîbûn û dijberiya xelkê wî welatî.

Bi wan hesaban, der dikeve ku tenê sitûna ku bi awayek nexwastî di xizmet Komara Îslamî de maye, abûriya welat e ku ligor şirove û nirxandinên abûrînasan li bêserûberî û lawaziya wê guman tune ye. Ew siyaseta şaş û gendeliya abûrî gihîştiye astekê ku dinav balê desthilatdarê rejîmê de, hev tawanbar bi gendelî û fesada abûrî dikin. Bitaybet ku di wan dawiyane de Mihemedreza Rehîmî Cihgirê Yekim ê Serokkomarê rejîma melayan, di nav hevbîrên xwe de bi serokê banda gendeliya abûrî hat nasîn.

Her li dirêjiya rawestan li ser wan pirsane, destpêka sala nû bi nûçeyên tirsinak ligor pêşbîniyên karnasên abûrî û civakî di wî warî de destpê kir. Weke: Hedefmend kirina Yarane yan, ku li gor pêşbîniya karnasên rejîmê, sala 1389ê Rojî di warê abûriyê de, bi bê bizavtirîn û lawaztirîn sal di dîroka Komara Îslamî de didin zanîn. Herwiha heman karnasên dewletî ên Îranê, wê yekê eşkere dikin ku heta di dema şerê 8 salî yê Îran û Îraqê de jî tu caran nirxa geşekirina abûriya welat heya hejmara bin sifrê de daneketiye, lê îsal ew tişt bûyerek hetmî ye.

Diyare pêwîste wê yekê jî bibêjin ku embargoyên abûrî ên navnetewî jî bê tesîr nebûne, bi bawera min sedema dorpêçên navnetewî li ser Îranê tenê di warê abûrî de jî her vedigere ser vê dîtinê ku Komara Îslamî bi tewayî dest bi ser abûriya welat de girtiye û take penaya bihêz a wê ye. Bi dîtinek din, sedema manewe û dirêj bûna temenê dîktaroran di Rojhilata Navîn de piştgirêdan bi çalên dewlemend ên Niftê ye ku êdî ji xelkê xwe bê minet bûne ku Komara Îslamî jî yek ji wan e.

Ew pirsên han bi tu awayekê siyasetên dujminkarane ên rojavayê ninin, belkî siyasetên şaş ên desthilatdarên Tehranê pawanxwaziya wan e ku abûriya wî welatî bi vî awayî hatiye talankirin. Ewa jî belgeyek zindî ye bo wê yekê ku eger sitûnên din ên civaka Îranê xwe jiber siya rejîma Komara Îslamî a Îranê de bi tewayî derbaz nekiriban, ewa rizîn û roxana wan dê mezintirîn diyariya melayên kevneperest ba ji bo xelkê xwedî çand û dîroka kevnare Îranê. lê ew xwe derbazkirine û valakirina bin piyê rejîma melayan, îşareyeke bo rejîmê ku çavek ji ber piyê xwe bike, dîtin û daketin û roxana yekcarî bi hev re be.

# PEYV, GOTIN Û AXAFTIN



ADAR JIYA
adarjiyan@mynet.com

Gotin, bi kurtayî tê wateya rêzeya peyvan a ku ji derbirîna hest û ramana mirov re dibe alav û navgîn. Belê ji wateya gotinê ya ferhengî bêtir wateyeke wê ya kûr û berfireh heye ku gelek rêman û têgînên din jî di xwe de dihêwirîne. Car heye gotin ji gelek hêzan çalaktir û hêza wê jî ji ya gelek tank û topan bandordartir dibe. Belê car heye jî tu hêz û wateya gotinê namîne ku bizav û tevger di hawara wê de neyên…

Manedarkirin û watelêbarkirina peyvan bi serê xwe hunerek e. Huner û xasukaneyî jî rasterê girêdayî fikirîneke kûr û berfireh e. Ligel vê rastiyê dîsa jî mirov nikare bibêje "axaftin an jî nivîsandineke kurt her gav ji ya dirêj çêtir an jî manîdartir e. Cî heye ku axaftina an jî nivîsandineke dirêj dibe pêdiviyeke rojane. Car heye jî peyivîn an jî vegotineke kurt têra derbirîneke kûr û berfireh dike

Bizav, wekî hewldana veguherandin an jî pêşvebirina rewş û tevgera ku nayê ecibandin tê ravekirin. Bi vegotineke din mirov dikare bibêje ne bizav dikare bêyî gotinê û ne jî gotin dikare bêyî bizavê li manîdariyeke xurt dagere. Ango herdu hev û din temam û têkûz dikin. Lê belê gava ku li hev û din nekin an jî bi ahengdarî tevnegerin herdu jî têk diçin û tu bandor û bandêra wan namîne.

Ne bi giştî be jî, exlebe mirov bêtir xwedîtiyê li gotin û bizavên ku tu car li hev û din nakin, dikin. Ev yek jî dibe sedema lêkdana navbera gotin û bizavên wan û her wiha şer û pevçûna navbeyna wan û mirovên din. Bi rastî neecibandin, zivêrbûn, biçûkxistin, durûtî, derewînî, bêahengî, bêsozî, bêrêtî, bêxêrî, bêkêrî, bêarî û bêbaweriya navbera mirovan, hemû ji destê bêahnegiya navbera gotin û bizavên wan e. Heta ku gotin û bizavên mirovan li hev û din dernekevin, tu kes nikare behsa takekesên bawerdar, kesayetiyên li hev û civakên ahengdar bike.

Bi gelemperî mirov, ji tevger û bizavên bilebat û erênî bêtir ji gotin û peyivînên bê lêçûn (bê mesref)hez dikin. Lewre wekî ku pêşiyan jî gotiye: 'Tu berê gotinê bi kîjan alîyî ve bikî, dê ew pê de here." Û dîsa tê gotin ku "Şitexalî (axaftin) bê pere ye" Belê bizav ne wisa ye. Ew, bêtir ked û hewldanê divê. Xebat û fedekariyê divê. Zehmetkêşî û cefakariyê divê. Sebr û semaxê divê. Tebat û lebatê divê. Serêşî, dilêşî û ezakêşiyê divê.

Gotin û bizav bi qasî xerakirin û çêkirinê ji hev û din dûr in. Û her wisa bi qasî nenûk û goşt jî nêzîkî hev û din in. Duristkirin û eyarkirin; ango nêzîkirin û dûrkirina navbera wan di destê mirov bi xwe de ye. Belê hewcetiya vê yekê bi bîr û vîndariyeke xurt heye. Lihevanîn û ahengdariya navbera bizav û gotinê barekî giran e. Karekî zehmet e. Ji neqebkirina kelehan jî zehmetir e. Her babaegîd û mêrxas (an jî dêegîd û jinxas) nikare xwe bide ber vî barê giran.

Bêşik û bênîqaş her mirov dikare pir xweşik biaxive, gotinên pir xweş bibêje û tiştên pir xweş vebêje. Belê ev yek tu car nabe pîvana qencî an jî erêniyên mirov. Tiştên ku gotin û axaftinên mirov didin peyitandin tevger û bizavên wî/wê ne. Dîsa jî her çend ku gotin û bizavên mirov li hev û din nekin jî wekî ku pêşiyan gotiye: "Gotina xweş bihara dilan e" Belê her car tenê bi gotina xweş jî bihar nayê. Divê hem axaftin bi gotinên xweş, hem jî gotinên xweş bi bizavên rengîn bêne xemilandin.

Axaftin, wekî vegotin û derbirîna devkî ya fikr, raman, hest, daxwaz, zanîn, çavdêrî, pêşniyarî, qewam û rûdanan tê zanîn û ravekirin. Bi kinayî ji vegotina devkî re axaftin tê gotin. Axaftin, hewcedarî ye. Be lê rastaxaftin(dîksiyon) tiştekî din e.

Rastaxaftin, şahîkî û estezîma zimên e. Estetîzm û bilêvkirina zimîên e.
Vekolîn,bilêvkirin û bikaranîna zimên e. Rastaxaftin, digel zanîna zimên, baldarî û behredariyeke xurt teknîkî dixwaze. Bi rastî, axaftina herî çê rastaxaftin e. Lewre, her axaftin li gorî rêpîvanên rastaxaftinê li wateyeke girîng dadigere û manîdar dibe. Heke ne wisa be dê hemû deng û livên ku ji devê mirov der dibin dê wekî axaftinê bêne pejirandin. Lê qet ne wisa ye. Ji bo ku di zimanekî de rêpîvanên axaftin û rastaxaftinê bêne cî, divê peyv û gotin bi awayekî têkûz bêne bilêvkirin. Di zimên de estezîma rastîn, tenê dikare bi bilvêkirin û rastaxaftineke baldar bi dest bikeve.

Axaftin, tenê ne rêzkirineke ketberê ya gotin û peyvan e. Ew, rastbilêvkirin û rastbikaranîna gotin û peyvan e. Ji bo wê divê her ziman li gorî rêpîvanên axaftinê û her axaftin jî li gorî rêpîvanên rastaxaftinê bête bikaranîn. Tiştê ku zimanekî bi mirov dide hezkirin û ecibandin axaftin û rastaxaftin e. Di axaftinê de rêzkirin û bikaranîna peyvan û her wiha sazkirina hevokan çendî girîng be, di rastaxaftinê de jî xebitandina deng û bilêvkirina peyvan ewqa girîng e.

Kaniya Helbestan

## Payîza dil bi xem



**Bêwar Mirgewerî**

Ez çi bêjim li ser Termên Şehîdan
Bi çi Îşare kim hawar û bêjim
Kor bûne her du Çavên min
Bi çi rondikan birêjim!
Payîz hat û xwe xemiland bi du Rengên Buz û zer
Xweziyên havînê zêdebûn, bûne kovan û keser
Xemla payîzê, ba û buran, Sirr û Tofan
Jiyana koçeriya kurdan hate goran
Xirab kirin mala kevok û Bilbil û kevên kuçerî
Heger girtin û kuştina kurdan û der bi derî
Wa dîsan hatin hejarê kurdan bikin purbanî
Şehîdkirina vê carê Qasimlo û şerefkendî xerîbî û bê xwedanî!
Tola wan nekin ji bîr, nebarînin rondikên çavan
Nebaşe bo şehîdan tazî û girîn,
Ew di nav dilê gelê xwe de dijîn.

# Şiroveya Gotinên Pêşiyan

Beşa 15



Çiya Mazî

"*Devê rovî negîhaşt tirî, dibêje ji xwe ti mirî*" weke ku min bihîstiye wisa ye: " *Devê rovî*

**1.** *nagihêje tirî, dibêje tirî tirş e*" (Q.Dêrsilavî)

" *An 'rovî têr e tirî tirş e'. Bi baweriya min van gotinana biwêj in. ji ber ku hukum pend tê de tuneye." (Ç.Mazî)*

**2.** "*Negîjî ber çem xwe hilneke*" eslê forma vê peyvê "*Hîn ne gihîştiye berçem xwe hildike*" ye (hinek herêm di dewsa "xwe" de "daw û dêlê xwe" dibêjin.) weke ji rewşa wê tê fêm kirin, biwêj e. Nîvîsa bi wî rengê (forma) gotina pêşiyan jî dibe. Lê nivîsa "negîjî" xelet e. rastiya wê "Negihîjî" ye(Q.Dêrsilavî)

*Belê gotineke pêşiyan e, ji ber ku hukum tê de heye dibêje (xwe hilneke), pend têde heye ew jî şîretê li mirovan dike û dibêje" berî tu karekî bike, an biryarekê bide, pêşî amadekariya xwe bike an berî tu karekî bike, hinekî lêkolînê bike" (Ç.Mazî)*

**3.** Gotina "*Pîsîtiyê çiqas di hev dî ev qas bîn dide*" hinek herêm, di dewsa "Pîsîtiyê" de "gu" bikartînin. Kîjan bê bikaranîn, ne xeter e. A xerab ku di dewsa "tevbidî" de "di hev bi dî" di dewsa "ewqas" de jî "ev qas" hatiye bikaranîn. Ji xwe ev in tiştê biçûk ku em dibêjin "tişt nabe, ne xetere", lê çendek şûnde, em dibînin ku bi temamî forma gotinê hatiye gûhêztin. (Q.Dêrsilavî)

**4.** Kî kare çi ji gotina "*Ti bikî kesan, tuyê bivî tesê*" tiştekî fêr bibe? Na ez bawerim, kes jî tiştekî jê fêm nake, bê çewa ku mirov tiştekî ji gotina "*Vir bive şamkûtnî, kes navê nava milê xwe*" Lewre forma wan hedimî ye. Bi qasî ku di bîra min de ye, forma gotina yekem "*Tu bikî bi kesan, wê bê serê nefsan*" Yanî ku tu xerabiyekê bi yekî bikî, dê ew xerabî bê serê te an bê serê hinekan ji malbata te.

**5.** Gotina duyem jî "*Vir bibin turê zêran, kes navê milê xwe*" Yanî ku her kes bi vira emel dike, pir an hindik, lê kes li vira xwedî derna yê, nabêje min vir kir. (Q.Dêrsilavî)

**6.** goitna "*Xweşiya gûzê, kakilê gûzê*" tu cêja gotinên pêşiyan nade mirov. Weke xwarina nîvpijî û bê xwê ye. (Q.Dêrsilavî)

*"Lê belê di gelek gotinên pêşiyan de, ji ber melodî û qalib, hevok temam nebûne. ew jî rêbazek gotinên pêşiyan e. Pêweber bi kêmanî ye, bi dizî ye".(Ç. Mazî)*

**7.** "*Lawê mencê, çû qezencê*" ne gotina pêşiyan e. Biwêj e. çiqas hukum tê hebe jî, tu ders û tecrûbên ilmî tê nîn in. Belkî me bi rewşekê dide haydar kirin. Tiştekî mirov ji vê gotinê bi şîretî bigre nîn e. (Q.Dêrsilavî)

45. "*Seyê bêzirav û tirsonek, gur tîne pez*" ne "*bizirav*" rastiya wê "*bêzirav*" e. Weke ya yekem jî dibe. Lê min bi vî awayî jî bihîstî ye: "*Seyê xerab pez dide gur*" (Q.Dêrsilavî)

*Di nava van gotinan de, yên ku min şîroveya xwe nenivîsandiye , ez şîroveya Qedrî dêrsilavî ji bo wan, rast dibînim. (Ç.Mazî)*

ÇEND GOTİNÊN ZARAVEYÊ SORANÎ

1- Eger gol nît, dirrkîş me be.
2- Çem bê Çeqel nabê.
3- Biraman birayî, kîseman Ciyayî.
4- Rêwî le kunî xoy helgerêtewe, gerr debî.
5- Kêw kêw nabênêtewe, çaw çaw debênêtewe.
6- Bira le pişt bira, meger qeza le xwe bê.
7- Giya le ser bincî xoy derwêtewe.
8- Aş le xeyalê, aşewan le xeyalê.
9- Nan bo nanewa, goşt bo qesaba.

**ÇEND GOTIN Û BIWÊJÊN BI ZARAVAYÊ DIMILÎ**

1. Estorî danê pêro, herî binê lingan de manenê (Hesp li hev dixin ker di bin lingan de dimîne).
2. Ay ke dêzikan virazeno, qulapan jî nano pa. (Ewê ku dîzika çêke, çemçikan jî pêve dike).
3. Awmê ariye berd,we hema gereno şeqşeqoy. (Aş çûye ew ketiye dû şeqşeqo) (biwêj)
4. Dayê qurbanê homay, lay xo hekar, ga bedelna here. (Dayê qurbana xwedê tayê xo jê veke, ga bi kerê guhertiye)Biwêj
5. Dêso ez tore vana, veyvê ti bieşnawe. (dîwaro ez ji te re dibêjim, bûkê tu fam bike) biwêj)
6. Paça here niye bena kilm. (Dûva kerê tunebe, dibe quto).
7. Boça kûtikî hewt serrî eşta mengene, tira veta hîna biya çinkivel. (Dêla kûçik heft salan avêtine mengenê, jê derxistine dîsa bûye çonkalî).
8. Gorîz biray qerî yo. (Gorîz birayê qerî ye).
9. Kê kerra kûtikiro danê, wayîrî ra şermayenê. ( Mirov kevir li kûçik dide, ji xwedî şerm dike).
10. Kerra şina serê qûçe. ( Kevir diçe ser qûçê).
11. Kîvar vat barê mi hendeko, la enî bînan cendeko. (Kîvarê got barê min ewqas e, ê yên din çiqas e?)
12. Kûtik goştê kûtikî nêweno. (Kûçik goştê kûçikan naxwe)
13. Kûtiko hewl verê pîsî de belû beno. ( Kûçikê baş li ber pîsî de diyar dibe).
14. Kûtik pê ziwar nîşîn sêyd.( Kûtik bê zere nêşîno seyde). (Kûçik bê dil naçe seydê).
15. Kûtik verê berê wayıyrê xo de laweno. (Kûçik li ber deriyê xwediyê xwe diewte).
16. Qûtwer ma wa, hakkerê şarî ya. (Qûtwarê me ye, hêkkerê xelkê ye).
17. Ti meşka ma bişû, ez şina meşka mîr şûwena. (Tu meşka me bişû ez diçim meşka mîr dişom). Biwêj.
18. Vereko hewl verê kiwezî de belû beno.(Berxê çê li ber kozê diyar e
19. Wehdê merjiwêlî amê,nişt taştê gawanî ra. (Ecelê kurmorî tê, bi teştê gavan vedinişe.
20. Weyîrê arî arê xo pawen, bêar vano qay mi ra tersa. (Xwedî ar arê xwe dipê, yê bêar dibêje qey ji min ditirse

LÊKOLÎN, ÇAVKANÎ:


1- Ferhenga Tirkî Kurdî: Zana FARQÎNÎ Enstîtuya Kurdî Stenbol
2- Ferhenga Kurdî Tirkî: Zana FARQÎNÎ Enstîtuya Kurdî Stenbol
3- Azadiya welat: Rojnameya Kurdî ya hefteyî
4- Jiyana Rewşen: Kovara Mehane ya Kurdî
5- Nûdem: Kovara Kurdî Ewropa
6- Salnameya NÇM 1999
7- ZEND: Kovara Enstîtuya Kurdî Stenbol
8- WAR: Kovara Lêkolîn û Lêgerînê
9- Gotinên Pêşiyên Kurdan: Huseyîn DENİZ
10- Gotinên pêşiyên Kurdan: A. BALİ. Weşanên Pelê Sor
11- Gotinên Pêşiyên Kurdan: Mustafa BORAK. Weşanên Berfîn
12- Gotinên Navdaran: Firat CEWERÎ. Weşanên Nûdem
13- Îdyomên Kurdî: Ahmet Zekî ÇAMLİBEL
14- Berê Gotin Hebû: Mustafa AYDOĞAN . Weşanên Doz
15- Ezman Şîn Ma(Gökyüzü Mavî Kaldı): Yaşar KEMAL,Sabahattîn EYUBOĞLU. Weşanên Görsel
16- Gotinên Pêşiyan Bi Vegotin(Açıklamalı Atasözleri): Cengiz YAŞAR,Turan KAYA. Weşanên Gendaş
17- Ferhenga Gotinên Pêşiyan (Atasözleri Sözlüğü): Sevîm YÖRÜK, Yaşar YÖRÜK. Weşanên Serhat
18- Ferhenga Biwêjên me (Deyimlerimizin sözlüğü)Asım BEZİRCİ Weşanên Gendaş
19- Li gorî mijara wan gotinên pêşiyan (Konularına göre Atasözleri sözlüğü): Salih SARICA. Weşanên Fîl.

agiri

**Duheftînameyek siyasî, civakî, çandî û hunerî ye ku Partiya Demokrat a Kurdistana Îranê diweşîne**

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php
**Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.**
**Navnîşana derveyî welat:**
AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

**E - Mail:** agiri2003@hotmail.com
agiri2003@gmail.com, rojnamaagiri@gmail.com

# Îran, Welatê Ku Li Cîhanê De Nayê Hezkirin




Derkete holê ku li cîhanê rêjeya kesên ku bi awayek pozetîv li Îranê dinêrin 15 ji sedê ye. Pakistan rêjeya 16, Koreya Bakur ji sedî 17 û Israîl ji sedî 19 li dû Îranê ne.
Di anketa navneteweyî ku Beşa Cîhanî ya BBC'yê li 28 welatan de çêkir, du welatên ku derbarê DYA'yê de baş nafikirin, Tirkiye û Pakistan in.
Li gel îmaja nerênî ya DYA'yê ya li Tirkiye û Pakistanê, di saleke dawî de li van her du welatan îmaja DYA'yê li gorî raya giştî ya cîhanê ber bi başiyê ve diçe. Anketa mijara nûçeyê, ji bo diyarkirina ramanên raya giştî ya cîhanê derbarê welatan di sala 2005'an de dest pêkiribû û ji bo anketê li 28 welatan bi 30 hezar kesan re hevdîtin pêk aniye.
Ji 2005'an ve rêjeya kesên ku serdestiya DYA'yê erênî dibînin, li 28 welatan derkete ser 50 ji Sedê. Anket bi hevkariya Bernameya nêzîkbûnên Polîtîkaya Navneteweyî ya Zanîngeha Marylandê û şirketa GlobeScanê hatiye çêkirin.
Di nava 28 welatan de welatê xwediyê îmaja herî erênî Almanya ye. Îran û Pakistan li gorî welatên din nerênî ne. Îmaja Almanyayê ya di siyaseta cîhanê de bi rêjeya ji sedî 59 erênî tê nirxandin. Ji sedî 52 Japon, ji sedî 51 Kanada û ji sedî 49 Fransa li dû Almanyayê tên.

# Hevwelatiyekî Kurd Balefirek çê kir



Piştî demek bi ser kar û çalakiyên berdewam, ji bo cara yekê di nava dîroka Kurdan de, welatiyekî Kurd bi awayeke serkeftî balefirek çêkir.
Welatiyê Kurd Nerîman Enwer Salih, ku ji Şîniyê ser bi Devera Herîrê ye, ragihand ku piştî demeke kar û çalakî û hewldanên cur bi cur bi hevkariya çend hevalên xwe yên Kurd me karî ji bo yekem car li Kurdistanê de dest bi çêkirina Balefirê bikin.
Nerîman Enwer Salih di berdewamiya axaftinên xwe de diyar kir ku, ew balefira han li Bajarê Herîrê hatiye ceribandin û bi awayeke serkeftî çend car firiyaye û li erdê jî rûniştiye. **KTV**

# Li Sûriyê Bavekî 4 Zarokên Xwe Di Çemê Firat De Berdan



Li Sûriyê, bavek bi navê Zekeriya D, her çar zarokên xwe davêje Çemê Firatê û wan dixendiqîne.
Bavê Kujer ji keça xwe ya mezin (5 sal) dest pê dike û bi yê biçûk (1 sal) disekine.
Ew dibêje di navbera wî û bavê wî de li ser seeta avê şer derketiye û wî weke tolhildan û întiqam zarokên xwe avêtine nav çem û ew xendiqandine.
Zekeriya D, dibêje ji ber ku bavê wî pir ji zarokên wî hez kiriye, lewma ew bi wê kiryarê rabû ye.
Li gora raporeke polîsan, berî ku ew zarokan bavêje avê, wî wêneyên wan jî girtiye û xwestiye ku weke bîranîn li cem xwe bihêle.
Malpera erebî Akis Al Seyr, nivîsand ku polîsan ew giritn.
Bavê kujer di firinekê de kar dike û tu pirsgirêkên wî yên dernûnî jî tunin in. Bûyera han li bajarê Minbicê çêbû. **Avesta**

# ''Min Dît'' Di Festîvala Istanbolê Sede Rkeftin Bi Dest Xist



Fîlma "Min Dît" bi sê xelatên giring, mezintirîn serkeftin li festîvala Istanbolê bi dest dixe. Şeş roj berî derbasbûna fîlma wî di sînemayên Almanî de, fîlma "Min Dît"pişgiriyek mezin li Istanbûlê dibîne. Di şahiyên belavkirina xelatan de, di galaya bidawîbûna 29'emîn festîvala navnetewî ya filman ya Istanbûlê, sê xelatên girîng gihan derhênerê kurd Mîraz Bêzar û fîlma wî "Min Dît"
Piştî wergirtina çend xelatan di 6 festîvalên navnetewî de mîna ya Hamburg, Antalya, Gent û San Sebastiyan vê carê li Istanbolê, Mîraz Bêzar û hevkarên wî serkeftinek mezin bi dest dixin. Bi yek carê sê xelat gihane filmê kurdî. Di nava wan de du xelatên herî giring yên festîvalê, xelata baştirîn derhênan ji bo Mîraz Bêzar û xelata baştirîn lîstikvan giha zaroka kurd Şenay Orak ya ku di film de rola Gulistan lîstibû. Herweha xelata baştirîn mûzîk giha Mustefa Bîber ji bo karên wî di filma **''Min Dît''**de.
Fîlm li ser zarokên kurd digere, yên ku dê û bavên wan ji hêla hêzên kûr yên hikûmeta tirk ve hatin kuştin. Zarokên sêwî, çawa li Amedê dijîn. Fîlm li gelek festîvalên navnetewî xelat wergirtin. Herweha ev yekemîn fîlma kurdî ye ku li Tirkiyeyê bi fermî tevlî festîvalên filman yên mezin dibe û xelatan jî werdigre. Fîlma "Min Dît" ji 22ê Nîsanê ve, li sernaserî Elmanya li zêdeyî 35 sînemayan tê nîşandan. Herweha ji 2ê Nîsanê ve li bajarên Kurdistana Bakûr û li Turkiyê derbasî gelek sînemayan bibû.
Ji bo agahiyên zêdetir li ser filmê: http://www.min-dit.com/ **Avesta**

